# Neh Milyon Û Dused Hezar Welatiyên Îranê, Di Bin Hêla Xizaniyê De Ne

Wezîrê Karê Civakî û Dabînkirina Asûdehiyê, di Komîsyona Civakî ya Parlemana Îranê de îlan kir ku nêzîk 9 milyon û 200 hezar welatiyên Îranê di bin hêla xizaniyê de ne.

Nêzîk 10.5 ji sedê ya akinciyên bajaran û 11 ji sedê a gundiyan, di hejmara han de cih digirin. Li gor agahiyên rojnameya “Sarmayeh” çapa Tehranê, serbarê hemû serhejmariyan, wezîrê han dîsan jî xwe ji danezanîna hêla xizaniyê parast û tenê hejmar û serhejmariya hêla destkurtiyê anî ziman û ji bo linavbirina vê berçaviyê û nasandina malbatên ku bi xizanî dijîn jî tu rê û çareyek pêşniyar nekir. Ewa di demekê de ye ku li gor benda “C” a madeya 95’an a Yasaya Çarem a bernameya pêşdebirina Îranê, divê ku dewlet û hemû organên dewletî heta dawiya sala duyem a vê bernamê hemû malbatên destkurt û xizan bidin nasandin û hevkariyên hewce ji bo dabînkirina pêwîstiyên jiyana wan dabîn bikin. Her wiha erkê dewletê ye ku astê hêla xizaniyê kifiş bike, lê ewa ji dewletê nahê dîtin, cîbicîkirina wî erkî ye.

Heya niha car care hêlên xizaniyê weke nisbî, tevanî, micid û dijwar di Îranê de hatine nasandin, lê heya niha tu gotinek li ser pênaseyeke tevgir û giştî a wê nehatiye kirin.

Xizanî û destkurtiyê di cîhanê de pênaseyên cur bi cur hene û Wezareta Karê Civakî ya Îranê heya niha serbarê erkê xwe yê qanûnî û wezîfeya diyarîkirî ya dewletê



di yasaya heyîn a salên 84-86’an de ku Wezareta han berpirsê diyarîkirina hêla destkurtiyê ye, heta niha tenê bo nîva yekem a sala 1384’an, erkê xwe birêve biriye. Piştre jî Wezîr daye zanîn ku ji niha şûnde vî karî nake û tenê de hêla jiyanê (Beqa), bide zanîn(hêla ku ji hêla xizaniya dijwar hindekê nizimtir e). Heftiya borî nûnerê bajarê Bicnordê û endamê Komîsyona Civakî di Parlemanê de, Mûselriza Serwetî got: “Wezîrê Karê Civakî û Dabînkirina Asûdehiya jiyanê, hejmara rastîn û karnasane ya nifûsa di bin hêla xizaniyê ya welat da û hitbara hewce bo hevkariya nifşa destkurt di ragihandinên xwe de pêşkêşî Meclisa Îslamî kiriye”.

## Zewicîn Û Berdan Di Parêzgeha Tehranê De:

# Berdanek Li Hember Her 5/4 Zewicînan

“Shahrzad News”: Birêveberê Giştî yê Tomarkirina Belge û milk û malan di Tehranê de, roja pênceşmî di koma nûçegihanan de ragihand, di heyama wan 4 mehên destpêka îsal de, 37537 xalên zewicînê û 6852 xalên telaqê di parêzgeha Tehranê de hatiye tomarkirin. Wî zêde kir û got serhejmariya zewicînê, derheq zewacên hertimî ne û tê de zewacên heyamî(sîxe) ku di binkeyên belgeyan de hatine tomarkirin, hesêb nehatine kirin.

Li gor serhjmariya ku ji aliyê Berpirsê Giştî yê Tomarkirina sened û milk û malan di Tehranê hatiye pêşkêşkirin, xuya dibe ku asta berdanê li gor zewicînê di parêzgeha Tehranê de jor de diçe. Li gor vê serhejamriyê li hember her 5/4 xal ji zewacan, xaleke berdanê heye.

Her di vê derheqê de cîgirê Saziya “Bêhzîstî” çend rojan berî niha derheq pirsgirêk û kirîzên herî girîng ên civakê got: Li gor serhejmariyan îtiyad û berdan mezintirîn kirîzên civakî ne ku welatê me xistiye tirsê.



# %60 Ji Daxwazkarên Berdanê Di Kurdistanê De Jin İn

Li gorî vekolîna serhejmariya zewicîn û berdanê di Parêzgeha Kurdistanê de, tê xuyakirin ku bi awayekî navincî her rojê 96 kes bi hev re jiyana hevbeş pêk tînin û li hember de her rojê 14 kes jî ji hev vediqetin û dawiyê bi jiyana hevbeş tînin.

Li gor rapora “ILNA”ê, di Kurdistanê de, aliyê kêm her rojê 7 xal ji berdanê pêk tê û ev yeke yê bûye sedem ku Kurdistan di salên borî de piştî parêzgeha Tehranê, bibe xwediyê pileya duyem a serhejmariya berdanê di welat de.

Li gor lêkolînên serhejmariya nifûsa van du parêzgehan, hejmara berdanê di Kurdistanê de pitir weke kirîzekê tê xuyakirin.

Hêjayî gotinê ye ku di nava kesên ku seredana serdozgeriyan bona ji hev veqetiyanê dikin, %60 jin %30 mêr û %10 jî bi awayekî lihevkirî seredana dadgehan dikin.

Di lêkolînên weşandî ji aliyê îdareya pênasê,(kotik), mixabin her weke salên borî em şahîdê jêrdehatina serhejmariya zewicînê û ji aliyeke din ve jordeçûna asta telaqê di parêzgeha Kurdistanê de ne.

Bi terzekê ku di sala borî de serbarê tomarkirina 17 hezar û 734 xal ji zewacan, serhejamriya îsal eyankerê jêrdehatine %2/59 vê hejmarê ye. Ji aliyeke din ve hezar û 120 kes bi veqetiyana ji hev, serhejmariya 2 hezar û 560 xalên telaqê di salên borî de tomar kirine ku ev hejmara li gor dema wekî wê 9/49% asta berdanê di Kurdistanê de nîşan dide ku piraniya karnasên zanista civakî bi tirs ve mêzeyî vê serhejmariyê dikin û bawer in ku jordeçûna serhejmariya berdanê û ji aliyeke din ve jêrdehatina asta zewicînê, bi liberçavgirtina zêdebûna nifûsê û ciwanbûna nifûsa welat, dikare bibe sebebê afirandina kirîz û arîşeyên weke: Tirsa ciwanan ji zewicînê û jordeçûna asta temenê zewicînê zêdebûna gendelî û tawanan di civakê de, jinavçûna normên ramanî, sincî û orfî yên malbatan di civakê de.

Li gor rapora “IWNA”ê, karnasên ravêjkarên malbatê yên saziya “Bêhzîstiyê” ên dadgehan bawer in ku pirsên aborî, îtiyad, balixnebûna civakî, bêkarî, heyama kêm a di navbera xwazbînî û zewicînê de, sedemên sereke yên jordeçûna asta berdanê di Kurdistanê de ne.

Serhejmarî nîşan didin ku 85% ji kesên daxwazkarê berdanê di dadgehan de ku di yekemîn salên zewicînê de biryara jihev veqetiyanê didin, ji hebûna pirsa aborî dinalin, asta xwendina wan di bin dîplomê de ye, her ji destpêka zewicînê de bi hev re nateba ne û ne xwediyê nasiyariyeke baş ji hev dû ne.

Hêjayî gotinê ye ku 4/5% ji zewicînên pêkhatî di parêzgeha Kurdistanê berdan e û bajarê Bane xwediyê zêdetirîn asta berdanê di salên borî de bûye.

# Jinên Îraqê Di Rewşeke Nebaş De Dijîn

Losîna Karşal, yek ji nivîskarên naskirî li Amerîkayê dibe, ew herwiha yek ji çalakvanên bizava jinan di wî welatî de tê hesibandin. Marşal îşare bi rewşa nebaş a jinên Îraqê kiriye û dibêje: li gor serhejmariya fermî, 8 milyon jinên bêserperişt di vî welatî de hene.

Li gor rapora "IWNA"yê, Marşal li ser vê bawerê ye ku jinên Îraqê tevî rewşeke dijwar berbirû bûne ku herdem di halê zêdebûnê de ye. Jinên pêgiran yên Îraqê, seba teqîn û pevçûnan, hikûmeta leşkerî, nebûna elektirîk û ava paqij bona vexwarinê û nebûna nexweşxaneyên hewce û doktoran, di rewşeke pir xirab de dijîn.

Marşal li gor gotina Îbrahîm Xelîl, doktorê taybetî yê jinan di nexweşxaneya El Kirayayê de dibêje: di her 12 demjimêran de, du jinên Îraqî hewcehîa bi çavdêriyên taybetî hene û seba nebûna lav û amûrên hewce an ew yan zarokên wan jiyana xwe ji dest didin. Dayîk pitir tûşî kêmxwariniyê dibin û zarokên wan jî seba nebûna xwarin û çavedêriyeke baş, bi kêmbûna kêşê berbirû ne.

Herwiha Marşal di ciheke din de îşarê bi raporên "UNICEF"ê dike û dibêje: %65 ji jinên Îraqî dema welidînê jiyana xwe ji dest didin.



Herwiha ew îşarê bi rewşa nebaş ya jinan ji ber domkirina şer û pevçûnan dike û dibêje: seba tund û tûjî û giraniyê û nebûna alevên pêwîst yên jiyanê, hejmareke zaf ji jinên Îraqî ber bi karên nebaş diçin.

Li gor rapora "IWNA"yê, li ser gotina El Cezîreyê, 8 milyon jinên bêmêr di Îraqê de hene ku 350 hezar kes ji wan tenê di Bexdayê de akincî ne.

Herwiha li gor rapora Saziya Jinên Azad Yên Îraqê, li gor belgeyên di dest de heyî, pitir ji 4 hezar jin û keçên Îraqî, ji dema şerê azadiya Îraqê şûnde winda bûne. Yanar Mihemed yek ji karkerên vê saziyê di hevpeyvînekê de tevî CNN'ê, eşkere kir ku piraniya wan bi zorî ber bi welatên din hatine dizîn.

Rojnameya "Independent" derheq wê çendê dibêje: pitir ji 50 hezar jinên Îraqî yên koçber û bêserperişt seba xwedîkirina zarokên xwe neçar bi laşfirotinê bûne.

# Cixarekişandin Tirsa Tûşbûn Bi Penceşêra Ser Û Gevriyê Di Jinan De Xurt Dike



Kişandina zêde a cixareyan tirsa penceşêra ser û gevriyê di nava jin û mêran de zêde dike.

Li gor rapora "IWNA"yê, li gorî çavkaniyên înternetî, pêka lêkolînên encamdayî hatiye kifşkirin ku di navber kişandina cixareyan û tûşbûn bi penceşêrên ser û gevriyê pêwendiyeke rasterast heye.

Pêka vê lêkolînê, penceşêra ser û gevriyê, deng, difin û dev bi xwe ve digire ku li gişt dinyayê her salê pitir ji 500 hezar kesên tûşbûyî bi vê penceşêrê hatine dîtin.

Di vê raporê de hatiye ku şika dîtina vê penceşêrê di nava mêran de sê hemberî jinan e û her wiha tirsa mirina mêran bi sedema nexweşiya penceşêrê du qatî jinan e. Di demekê de ku tûtin weke girîngtirîn fakter bo zêdebûna tûşbûnê bi penceşêrên ser û gevriyan hatiye naskirin. Lê lêkolînên nû eşkere dikin ku cixarekişan bandoreke zêdetir di xurtbûna penceşêra ser û gevriyê di jinan bi nîsbet mêran heye.

Li gor van lîkolînan ku li ser 476/211 kes ji jin û mêran di nava salên 1995 heya 2000'an hatiye encamdan, hate kifşkirin ku tirsa cixarekişanê bo tûşbûn bi penceşêrên ser û gevriyê di nava jinan de pitir ji mêran e.

%45 ji penceşêran di nava mêran de dikare ji rêya cixarekişanê be.

Di demekê de ku ev aste di nava jinan de %75 e.

# 60 Salî Ye Û 78 Zarokên Wî Hene

78 zarok têra wî nakin..!

Rojnameya Avestayê di nûçeyekê de belav kir, bavekî xwedî 78 zarok di 60 saliya xwe de ji bo bigihêje armanca xwe ya xwedîtiya 100 zarokan ji xwe re li du jinan digere. Li gora nûçeya rojnameyeke herêmî ya Mîrîtiyên Erebî yên Yekbûyî, Daad Mihemmed Mûrad Ebdul Rehman ji bo ku heta sala 2015'an bibe bavê 100



zarokan ji xwe re li du jinên ku karibin jê re zarokan biwelidînin digere.

Ebdul Rehman di daxuyaniya xwe ya di rojnameyê de dibêje, "di sala 2015'an de ezê bibim 68 salî û bavê 100 zarokan". Her weha Rahman radigihîne ku piştî ew gihîşt armanca xwe ya 100 zarokan ewê dev ji zewacên nû berde, lê ji bo ku mora xwe li sedsala 21'em bixe, ewê hîn du an sê cara bizewice. Niha jî ji sê jinên wî du heb du canî ne û hemû malbata wî ku mezintirîn 36 salî û biçûktirîn jî 20 rojî ye, li 15 malan jiyana xwe didomînin.

Li gora qanûnên vî welatî ji bo ku 4 jinan derbas neke, bi her zewaceke nû re mirov divê jineke xwe ya kevn berde.

# Keça 14 Salî Bi Mêrekî 65 Salî Re Zewicandin

Kurd hîn jî ji adestên xwe yên herî xerab, xelas nebûne. Keçên xwe yên 14 salî bi mêrên 65 -70 salî re dizewicînin û jiyana wan dikin cehenem.

Keça bi nav **Meqbûle** ya 14 salî bi mêrekî bi navê **Elî Demir** re zewicandin.

Ew ji Erzerumê nawçeya Qereyazî ye.

Berî 2 salan Meqbûle Demir hate Îzmirê û di nava perîşaniyê de jiyana xwe berdewam dike.

Meqbûle dibêje, dema ku ez çûme mala zava, min texmîn kir ku ez çûme mêvandariyê. Meqbûle niha 31 salî û diya 4 zarokan e, reşa wê ya madî gellekî xerab e....

Meqbûle 15 salan bi mêrê xwe re ma, lê belê jiyana wê weke cehenemê derbas bû.

Mêrê wê di sala 2005'an de mir, ew niha tevî zarokên xwe li Îzmirê di rewşeke perîşan de dijî.

Meqbûle, ji ber ku pereyên wê tunebû were dermankirin, lingekî wê hate jêkirin.

***"DIHA"***

# Bîr Û Baweriyên Pûç

ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com



Di jiyana civakên dîrokî de rol û rista ol û baweriyên civakî ya li ser jiyana mirov gellekî balkêş e. Ji bo wê hêja ye ku mirov bi baladarî li ser vê ristê raweste û serê xwe biêşîne.

Her ol û baweriyên xwedayî li ser riknê hilberiyê ava dibin û li gorî pêwendiyên hilberiyê teşe digirin. Bo nimûne; civaka kolemend, li gorî xwe, xweda û benıyan vedihêne. Dirûvê xwedayên cıvaka kolemend dişibe efendî, dirûvê beniyên wê jî dişibe koleyan. Dirûvê xwedayên civaka derebegî(feodal) dişibe axa û began; dirûvê beniyên wê jî dişibe xulam û qerwaşeyan. Dirûvê xwedayên civaka sermayedar(kapîtalîst) dişibe karsaz(patron) û dirûvê beniyên wê jî dişibe karker(proleter)an. Ango xweda û benî, li gorî pergala heyî rengê dûgela demê dirb û dirûv diguhere.

Li gorî hin angaştên derezanistî, ne jiyana mirov li gorî ol û baweriyê teşe digire û ne ji dewlet li gorî fermana xweda tevdigere. Berevajî wê, ol û bawerî li gorî jiyana mirov û xweda jî li gorî pergala dewleta heyî dirb û dirûv digire. Bihuşt û dojehên wê dinê(axiretê) jî li gorî rewşa vê dinê û jiyana civakê têne sêwirandin. Lewre hem xweda û beniyên demê û hem jî bihuşt û dojehên ku bi destê mirovan/seredestan têne avakirin, li ber çavan e. Her wekî din, dinya û her wiha bihuşt û dojehên ku li ser rûyê dinê têne avakirin hemû wekî yên derewîn û yên dinya din (axiretê) jî wekî yên rastîn têne nîşandan. Belê a rast, her gav yên wê dinê li ser riknê rasteqîniya vê dinê hatine nîgarkirin.

Tu civak bê ol û bawerî nejiyaye. Belê her civakê jî bêşik xwe spartiye xwedayê ku ew di hizra xwe de afirandiye. Gelek caran, ew biş xwe dibe beniyê(evdê) xwedayê ku wî/wê bi destê xwe xulîqandiye. Wekî Cenabê Umerê Xetab jî dibêje: "Me, bi destê xwe ji pelûlê(helawê) senem çê dikirin û em bi wan dihemilîn. Gava ku em diçûn nêçîrê jî, me, ew bi xwe re dibirin çolê. Îcar ku em birçî dibûn jî, me, ew dixwarin." Ango wan, xwedayê xwe dixwar.

Îro jî gellek bîr û baweriyên pûç ên ku bi vî rengî didomin, hene. Gellek mirov dibin dîl û beniyên tiştên ku wan bi xwe afirandiye. Gelek hizr û fikrên derezanistî ên ku jiyana civakê serobin dikin, hene. Di vir de hem rola nezaniyên olî û hem jî rola nezaniyên zanistî ya ku li ser jiyana civakê hikum dike derdikeve pêş. Hewce ye ku ev herdu mijar baş werin dahûrandin û ravekirin. Lewre di navbera nezaniyên olî û nezaniyên zanistî de pêwendiyeke xurt û jênager heye. Gellek caran rê û rêbazên olî û yên zanistî tevlî hevdu dibin.

Ol û zanîn du tiştên dijber û lêkneker ên bêdeman in. Li cihê ku rêbazên olî hebin, zanîn nikare tevbigere.. Û li cihê ku zanîn jî hebe, ol nikare hebûna xwe bidomîne. Lewre, zanîn li ser riknê şikdariyê ava bûye. Û ol jî bi şikdariyê re qet nelihev e. Ku şikdarî hebe, ol têk diçe û rola baweriyê namîne. Lewre bawerî, bi tiştên ku hebûn û tunebûna wan ne diyar e, tê. Hewcetiya tiştê ku hebûna wî hatibe selîmandin jî bi baweriyê nîn e. Ji bo wê, ol û bawerî, gellek caran di destê kesên muzir û mizawir de wekî alavên xapandin mêtingeriyê tên bikaranîn. Kesên xeşîm û nezan her gav xwe dispêrin rêbazên olî. Û baweriyên bêbinyat ji bo xwe wekî qinyat dibînin.

Bîr û baweriyên pûç tu carî nikarin ji bo pisrgirêkên civakê bibin çareserî. Belê hemû pirsgirêkên civakê, dikarin her gav girêdayî rêbazên zanistê çareser bibin. Ji bo wê, hewce ye ku em xwe bispêrin rê û rêbazên zanistî û zaneyane.

Pexşan

# Wî Şepalê Ku...Lingê Xwe Xwar!

Besam Mistefa

Ji ber bindestiya me ya dirêj-ya neteweyî û civakî û aborî û çandî....hwd-tiştek pêwîst bû ku azadiya windayî bîne bîra me! Mixabin, ku nexewşiya me kurdan ya here dijwar **Jibîrkirine**!.Em zû tiştan jibîr dikin:yên baş û yên xirab! Wisa dixuye ku, divê hercarê tiştek an jî bûyerek biqewime, rûdanek rû bide daku tiştê hatiye jibîrkirin, bibîra me bîne.

Wî şepalê ku lingê xwe xwar û kire qurbanê azadiya xwe (nûçe di malpera Nefel-ê de hatiye belavkirinê), dîsa buhayê azadiyê–nemaze ya takekesane–anî ber çavan. Metelmayî, min li wêneyê şepêl mêze kir: Gelo azadî wisa giranbuhaye ku mirov...na ku lawir û ajal jî lingê xwe bikine qurbanê wê? Gelo, azadî wisa hêjaye ku wî şepalî lingê xwe xwar daku wê bidest xîne? Belê, mirin ji jiyaneke bê azadî, sed carî xweştire!.

Lêbelê, em kengî azad bûn heta em weke şepêl bikin: Li her derî zîndan!.Di malê de, dê û bav û birayên mezin. Li kolanê, awirên çavên sor û westiyayî ku li benda wê rojê ne ka kengê ewê heyifa xwe ji erd û asîman, ji yezdan û ji pelîdan, ji pêşeroj û ji paşerojê, bistînin...Li dibistanê, mamosteyên xwedî dar....hwd-awiya jiyana pûç û vala.

Na, jiyan ne pûç û vala ye, em wisane!

Îro roj, şepalê ku lingê xwe xwar, hêjayî pûtekî sade zêr yê azadiyê ye: ji pûtê li Amerîkayê mezintir û xweşktir.

Wî şepalê ku lingê xwe xwar wane, îbreteke herî mezin da me: Mirov mirî ye hetanî ku vê pirsgirêkê-ya azadiyê-çareser bike, angu azadî wisa girîng û mûhîme ku bi hebûn û nebûna jiyanê bi xwe ve girêdayî ye, bi gotineke din: bê azadî jiyan nabe!

Diyare ku, eger takekes ne azad be, mal jî azad nabe. Dîsa, eger mal ne serbest û aza be, civak jî nikane azad be, û eger civak ne azad be, welat jî ne azad e, û eger welat ne azad be, cîhan hemû ji azadiyê bêpar dibe. Destpêk û dawî, her azadî ye. Mirovê bendkirî û di nav qeyd û bendên ku nayên hîsab û hijmarê de be, dê nikaribe tiştekî pêşkêş bike, ji ber ku ew ji çeka herî bihêz ya kar û jiyan û berhemdanê, bê pare: weke yekî mirî. Lêbelê, mirî jî azad in! Bi gotineke din, mirovê wisa ne sax û nejî mirî ye û eva bi xwejî ji mirinê dijwartir e.

Wisa dixuye ku, azadî ji wê silogana ku di belavokên partiyên me de, tê avêtin, bi gelekî mezintire taku lawirek, şepalekî xweşik û birûmet! Lingê xwe, rasttir, jiyana xwe -bê dudilî-bike qurbana wê. Belê, Bi azadiyê dexl şîn dibin**...**bi azadiyê gul bîn didin...Bi azadiyê em jîr dibin....Qehr û xemê hun çê nekin!!

Ez gelek caran di zivistanê de, di nav serma û seqma wê de, pencereya devera ez lê(ji ber ku tucarî cî, ne ciyê min bûye!) vedikim. Yê ku min nas dike wê bêje qey ez wa dikim daku dûyê çixareya ku nayê vemirandin, derkeve. Lê, eva ne raste! Tenê ji bo hinek azadî ez wisa dikim, ji bo xwedayê min bibîne ku, çiqasî min jê lavakiriye ku tenê hinek...azadî bi bayê sibê re bi ser topraxê mirina min de, bişîne!

Belê, bi azadiyê gul bîn didin.......**!**

# Wêneyê Dinyayê Yê Dawîn



Îbrahîm Seydo Aydogan

Do û pêr, herdu şevan jî ew li kevîşênê dîtibû.

Belkî berî wê jî dîtibû, lê nedihat bîra wî.

Ev çend şev bûn, ji ber acizî û bêhntengiyeke giran ku wî jî nizanîbû bê ji ber çi bû, xew nediket çavên wî. Ya rastî, xewa wî dihat û çavên wî jî pê re diqerimîn... Lê belê, dîsa jî nikarîbû raketaya.

Pirtûka di destê xwe de ku ev çend roj in, her dixwand û tiştek jî jê fahm nedikir û ji ber vê yekê jî serê wî bi temamî êşandibû, bi halekî westiyayî danî kêleka xwe. Ji bo ku hebekî bihataya ser xwe, rûyê xwe mist da, xwe di cih de vezeland û bi dû re hêdîka rabû.

Rahişt paketa çixareyê û hesteyê xwe û derket.

Li derve, dinya reş û tarî bû. Şev nîvê şevê... Heyv ji ber avahiyên doraliyê nedixuya. Wê saetê, tu kes jî li derve tune bû.

Xelkê ew bidîtaya dê bigotaya qey dînekî heram bû û dê xwe ji ser rêya wî bidaya alî.

Çixare di dest de, serî di ber de... Westiyayî... Ji lewre, pişta wî hebekî xûzbûyî. Porê wî bela wela...

Eynî weha...

Gava dageriyabû ber deryayê, hingî tarî bû, derya jî nedixuya. Heyvê, bi tenê ji dûranê û dida cihekî avê yê gelekî bisînor. Stêrik tune bûn. Dinya bi wî awayî, mîna tabloyeke çêkirî dixuya, an jî zindaneke ku bi tenê di taqeke wê ya piçûk û ji gelekî jor ku destê kesî nikarîbû bigihîştayê re, siya heyvê xwe bi qulkirina perdeya taritiyê re bera hundir dida.

Yê ku hayê wî jê tune bûya û bêhna wê û dengê pêlên wê nas nekiraya, heta negihîştaya ber jî dê nizanîbûya ku derya li pêşiya wî bû. Pêlên ku mîna çarşefeke reş li ba dibû, di ser hev re diqulipîn û dihatin; mîna ku di govendekê de bûn, çûyin û hatina berbûyan dianî bîra mirov, erd dialast û vedigeriyan.

Guh neda şimika xwe, da nava avê û di qiraxa deryayê re, di nava pêlan û axê kevîşenê re meşiya. Pêl, gava li wî diketin, ji lingên wî hildikişiyan çongan û dîsa bi şûn de vedigeriyan.

Lempeyên kafeteryayên peravê ji dûr ve şewq dida.

Hebekî bi wî awayî meşiya. Gava êdî kevir mevirên hûrik di bin lingên xwe de his kirin, sekinî. Bi awayekî bêhêvî, li aliyê malan niherî.

Do ew li wira dîtibû...

Dinya do ji niha rohnîtir bû û heyv di çavên wê de dibû du perçe. Pişta xwe dabû dîwêr û ne mîna ku rûniştibû, mîna ku hinan ew danîbû ber dîwêr, rûniştibû. Çav li deryayê... Westiyayî... Jihaldeketî... Sêrê wê bi ser çongên ku kişandibûn zikê xwe û herdu dest li wan gerandibûn de ketî...

Qey îro nehatiye! Belkî jî dîsa weke do, li ber dîwêr rûniştibe û ji ber tariyê xuya nake.

Hilmek li çixareya xwe xist û meşiya. Lingên xwe li pêlan dixistin.

Ba... Pêl... Şerpînî... Bêhna bedena wî ya xwêdayî...

Serê wî êşiya. Di vê de, bandora nedîtina wê jî hebû.

Ma qey ji bo ku ew bidîtaya derketibû?

Na! Heke weha bûya jî li xwe mikur nedihat.

Dengek.

"Mi go!"

Dengê pîrekekê. Kubar û lerzokî...

Bi lez di ser milê xwe re zîvirî. Li dora xwe niherî û bêserî li cihê dengî geriya.

Xwediya dengî xuya nedibû. Tew belkî bangî wî nedikir jî.

"Ez li vira me!"

Li aliyê dengî zîvirî û bêtir bala xwe dayê. Vê carê, baştir têgihîşt. Deng heta ku digihîşt wî, diricifî.

Yek li wî aliyî rûniştibû. Reşê wê ber bi çavên wî ve ket. Hema bi zorê dixuya.

Zilêm bi tirs bersiv da.

"Ez?"

Dîsa wî dengê xweş... Belkî keçikek, an jî pîrekeke bedew be, an jî hingî wî ji dil dixwest ku weha bûya, tiştên bi vî rengî dihatin bîrê.

"Li qisûrê nenihere. (Sekinî. Bi dû re domand.) Gelo çixareyeke te ya zêde heye?"

Dengê wê bi rastî jî diricifî.

Ma wê sar bû?

Ma çima wî dê çixareyek nedaya wê. Ji xwe ew jî li tiştin weha digeriya.

Vê saetê! Hebe nebe, ew e.

Xwedê bike ku ew be.

Ber bi wê ve çû. Keçikê serê xwe rakir û bala xwe dayê.

Çixareyek ber bi wê ve dirêj kir û jê re vêxist. Agir di rûyê wê de biriqî.

Rûyekî ziravik ku gava mirov lê dinere, mirov qet nikare kêmaniyekê ji bedewiya wî re bibîne. Dev, bêvil... Çavên birqokî yên di bin mijangên dirêj û şilbûyi re li zilamê li ser serê xwe diniherî...

Şilbûyî!!?

Ma giriyabû qey?

Çixareya xwe vêxist û dîsa di qiraxa çavan re, li wî niherî.

Melûl. Liberger.

"Spas."

Zilêm gêjbûnek his kir. Dixwest hema dinya di wira de bisekiniya û wê gava ku wan çavan li wî diniherî, bibûya wêneyê dinyayê yê herî dawîn. Derya di dilê wî de keliya.

"Xem nîn e."

Dixwest xwe bidaya tengala wê û ji xwe re li cem wê rûniştaya.

Eyb e! Ma dibe!?

Pir dixwest. Dikir û nedikir, nikarîbû xwe bigirtaya.

Hewil da xwe, lêva xwe gez kir (dilê wî pir êşiya) û vegeriya ser rêya xwe.

Jinikê hilmeke din jî ji cixareya xwe kişand û berda. Serê xwe dîsa li ser kêlekê danî ser çongan û di pey wî re niherî.

Zilamek... Ziravik... Kubar... Vê saeta ku herkes di xeweke kûr de ye, xwe daye bin baskên şevê. Bi tena serê xwe...

Hê nû li xwe fitilîbû û du sê gavan bi dûr ketibû.

"Tu do jî li vira bûyî."

Dengê wê... Misoger giriyaye. Te digot qey dengê wê ji girî ketibû û ji ber wê, gava ku dipeyivî xirtexirt ji qirika wê dihat. Bi wî re dipeyivî.

Zilam sekinî. Nepeyivî.

Ma do ew li vira bû, an ya ku dipirse dixwaze bibêje ku "Do em herdu jî li vira bûn."

Lê vegeriya. Bi bişirandineke keribî... Bi bersiveke derewîn...

"Erê. Şev xweş e."

Keçikê bi destê xwe cih nîşanî wî da.

"Ma tu rûnanî?"

Zilêm xwe da tengala wê û rûnişt. Ji xwe, bi dilê wî bû. Keçikê dîsa bala xwe da deryayê û ma.

Wî bala xwe da keçikê. Bi dû re, çixareya destê xwe avêt û beyî xwe yeka din vêxist. Vê carê, êgir da rûyê wî. Serê xwe ji ser êgir bi kêlekê de xwar kir û xwe ber bi êgir ve bir.

Porê wî dirêj... Mîna deryayê pêl bi pêl... Rûyê wî spî û fireh... Zilamekî bêsimbêl... Bi temenê xwe, bîst û pênc, sîh...

Keçikê ji nişka ve û dîsa bi eynî rehetî û bêhnfirehiya bîstika din, got:

"Tu li van deveran belasebeb digerî."

Û galegala xwe domand:

"Kes nayê."

Ev çi dibêje? Kî digere? Li çi? Ma ez digerim, an ew?

Qey bi xwe re dipeyive...

Got;"Te ev ji ku derxist?" û lê zêde kir:

"Ez ne li bende kesî me."

Derew...

Keçik ji xwe ewle ye. Mîna ku wî baş nas dike... Belkî jî xwe baş nas dike.

"Tu li çi digerî hingê?"

(Ev mijarin ecêb in. Di çîrokên fantastîk de, tişt miştin weha hene. Diyalogên bi vî rengî... Peyivên ku herkes nikare bike...)

"Ez li tiştekî nagerim. Min tiştek wenda nekiriye."

Keçikê serê xwe ji ser çongên xwe ranekir. Lê dîsa jî bersiva wî bi heman bêhnfirehiyê dayê. Mirov digot qey dilê wê li peyvê tune bû. Acizî.

"Mirov tiştek wenda nekiribe jî li tiştinan digere. Tim û daîm tiştin kêm hene."

Sekinî. Dîsa bi eynî awayî. Dengê wê behsa çi bikiraya jî nediguherî. Vî awayê dengê wê û peyivên wê şikil dida rûyê wê yê ku ji tariyê baş nedixuya. Her ku tiştek bigotaya jî rûyê wê xweşiktir dibû.

Zilêm dixwest hema biçûya li hember wê bisekiniyaya û mîna wê serê xwe li ser çongan xwar bikiraya û ji xwe re li bedewiya wê, li çavên wê biniheriyaya û heta ku jê têr bibûya, temaşe bikiraya...

Vê carê, zilam peyivî.

"Carinan ez jî li vêya difikirim. Lê ez nikarim tu navan li tiştekî bikim."

Keçik îcar bişirî. Qey dizanîbû ku wî ê weha bigotaya.

Dîsa jî ber dilê wî xweş kir.

"Dibe."

Bîstikekê serê xwe rakir û bi baldarî li zilêm niherî. Bi dû re, dîsa bala xwe da cîhê berê û got:

"Tu ne ji vira yî?"

Rast e. Ji ku pê derxist? Qey ew ji vira ye?

"Ez ne ji tu deveran im."

(Ev ne derew e. Warê min nîn e. Welatê min nîn e. Ez navê xwe nizanim.)

Keçikê lê niherî. Xwest têbigihîştaya. Na! Têdigihîşt.

(Rûyê min dixwîne. Çi gava ku hinan mîna vêya li min niheriye, ez li ber xwe ketime.)

Jineke bedew... Rûyê wê dike çîrokeke bikerib vebêje.

Keçik dike bigirî. Zilam dike dîn bibe.

Dilê wî dikeve wê.

Derdekî din...

Gelo aniha gava jê re bibêje, "were bibe hezkiriya min", ew ê bixeyide?

Keçikê destê xwe dirêj kir û bi destê wî girt.

Gava peyiv ji nav lêvên wê yên ricifokî derdiketin, li pey hev dikuliyan.

"Ez dixwazim îşev di hembêza te de rakevim."

Sekinî. Ew ê vê carê teqez bigirî. Destê wî di nava destê xwe de eciqand. (Te digot qey keçik bi wan destê xwe yên nerm û sincirî, sînga wî mist dida.) Serê wî gêjtir kir.

Bi dû re, ji nişka ve destê xwe kişand. Destê zilêm di valahiyê de ma. Dilê wî êşiya. Keçikê serê xwe bera ber xwe da.

"Bibihure."

Çavên wê li hemanan in. Çima nagirî?

"Min nepirsî, bê ka tu dixwazî, an na."

Ba... Zilam ricifî. Belkî jî ne ji ber bê be...

Vê carê, wî bi destê wê girt. Keçikê destê xwe nekişand, lê serê xwe jî ranekir.

Destên hevdu guvaştin. Zilêm destê xwe kişand û hêdîka danî ser milê wê û ew ber bi xwe ve kişand, serê wê xist hembêza xwe. Pişta wê mist da. Rehetî...

Dû re, keçikê serê xwe rakir. Hevdu himbêz kirin.

Lêv dan ser hevdu û ji ser hişê xwe ve çûn. Di ber re hevdu tazî dikirin.

Germehiya bedenan... Nermahiya laşan.

Hevdu bi destan nas dikirin.

Pişt... Kêlek... Kulêmek... Çîp...

Lêv li ser lêvan.. Dixan bi ser seran.. Li ser sîngê...

Herdu bedenên sincirî bûn yek.

Tev li hev bûn û man...

Roja din...

Serê sibehê...

Meytê zilamekî di torên masîgiran de alîqî.

Zilamekî esmer î zirav... Porê wî jî mîna bejina wî dirêj... Mîna deryayê, pêl bi pêl... Rûyê wî fireh û spîboz... Bextreşekî bêsimbêl...

Bi temenê xwe bîst û pênc, sîhsalî...

Li ser lêvên wî bêhnfirehiyek û bişirandineke keribî...

# 50-Sal Jiyan: Ciwan Haco Sipas Bo Te!

**Besam Mistefa**
**Hewlêr-26-8-2007**

Ciwan Haco....niha ji nav anjî mirovekî mezintir e: di nav ristên hestyaran de gerokekî nazik û dilnerm e. Di nav xewn û hêviyên gencên kurdan de hêvîgeşker e. Di sibehên di pêş de yê şehîdan, çirisînek e. Di asîmanê welatekî birîndar û keserkûr de, stêrkek e.

Ew li kû dibe bila bibe, dengê wî bi me re ye. Parçeyek ji can û giyanê me ye. Li her derî zenga zenga zengilê dengê wî deng vedide: li Helebçeya şehîd, li Qamişloka serhildanê, li Amed, Hewlêra paytext, Batman, di nav guliyên Zîlan û Zekiyeyan de ye.

Ciwan îro nîvsedsalê ji jiyana xwe diqedîne.

wê wateyê ku Ciwan dîrok û rabirdûya xwe ya ku bi kasêta Amîne Amîne destpêkir, jibîrkiriye. Tenê ew bala xwe aniha bêtir dide tiwêjeya gencan.

"Dema carekê Ciwan hatibû serdana bajarê xwe Tirbespiyê-xortekî behsa wî kir û got ku: komek ji helbestvan û rewşenbîr û nivîskaran çûne serdana wî, ez jî-xort dibêje-bi bavê xwe re çûm. Paş silav û bixêrhatin kirinê, cemaatê gazin ji Ciwan kirin ser şêwaza wî ya nû ya stran û muzîkê. Hingî Ciwan berê xwe bi min de kir, destê xwe berbi min ve dirêjkir û ji wan re got: Ez ji vî xortî re distirêm ne ji we re!". Belê, Ciwan Haco dizane çi dike. Di "dînîtiya" wî de aqilmendiyeke kûr ya derûnî heye.

Lê, Ciwan dike û nake, girî ji çavên me dûr naxîne, bi ser da jî, ew bi xwe jî kasêt bi kasêt bi çavên xwe nikare û hema hema



Parsal, li Hewlêrê cara yekem bû ku min Ciwan-di konsêrtê de- ji nêzîkayî ve dît. Lê peywendiya min bi dengê wî re vedigere berî 10-15 salan. Di malbatê bi giştî de, û di gund de-Cumaayê(niha taxeke girêdayî bajarê Qamişloyê ye) hezkirinek taybet ji Ciwan re heye. Bi dengê xwe, yek ji malê ye: weke gellek malên kurd yên din.

Tiştê ku bala min kişand, dema dîtina min jê re, sadeyiya wî bû: Ciwan nefisbiçûk, dilkovan, weke xwe ye! Helbet, ev sadeyiya wî ji zanîneka kûr tê, ne ji valahiyekê weke ku hinek kes hizr dikin!

Ciwan Haco, li ser asta cîhanî ya muzîk û hunerê, di dema niha de weke nûner anjî balyozê strana Kurdî ya nûjen tê hejmartinê.

Me got muzîka nûjen. Lê qet ev nayê

firmêskên wî dibarin: xerîbî hîn berdewam e. Şehîd pir dibin. Welat bi sê cihan birîndar e. Kurd di nav pêlên êş û keseran de jiyanê dibine serî. Kurd neviyên êş û janê ne!

Qamişlo di nav agirê kînê de, sînordar e!

Amed..şehîdan bi tava rojê re dihejmêre!

Mihabad...li ser çar çirayên vemirandî radize!

Lê, dengê wî her bi me re ye
Hêviyê geş dike
Xewnê av dide
Û va....
Zenga zenga zengilê min
Vaye dîsa deng veda
Dengê doza welatê min
Dinya girt û berneda...dinya girt û berneda.

agiri

**Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî**
**Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne**

**http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php**
**Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.**
**Navnîşana derveyî welat:** AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

**E - Mail:**
**agiri2003@hotmail.com**
**agiri2003@googlemail.com**

# Berga 2 Ya Albuma Şehîdan Derket




Hejmar yan berga 2 ya pirtûka **Albuma Şehîdan**(2) çap û belav bû. Pirtûk ji aliyê beşa Şehîdan a Komsîyona Civakî ya PDK Îranê hatiye berhevkirin. Piştî destpêka pirtûkê, kurtiyek ji jiyana her sê şehîdên rêber ên PDK Îranê, **Pêşewa Qazî Mihemed**, **Dr. Ebdulrehman Qasimlo** û **Dr. Sadiq Şerefkendî** hatiye nivîsandin.

Di pirtûka Albuma Şehîdan ya 2 de, wêne û pênaseyeke kurt ji şehîdên rêya azadiyê ên Komeîte Şaristanên: **Pîranşer**, **Nexede**, **Şino**, **Urmiye**, **Selmas** û **Xweyê** hatiye cihkirin.

Şehîdên Kurdan pênase û sembola mana niştîman û neteweya Kurd in. **Desteya Weşana Agirî** bona vê ked û xebata Komsîyona Civakî a PDK Îranê spas û pêzanînên xwe yênbêdawî pêşkêşî xebatkarên ku ev pirtûke berhev kirine, dike û ji wan re hêviya serkevtinê dixwaze.

# Serok Komarê Amerîkayê Bi Tundî Hişyarî Da Rayedarên Rejîma Îranê



Corc Bûş, Serok Komarê Amerîkayê, di çend rojên borî de di axavtinekê de bi tundî hişyarî da Îranê û got ku Komara Îslamî a Îranê heyamek e yê bûye çavkaniya alozî û kirîzan di herêmê de.

Wî di gotinên xwe de îşare bi alîkariyên rejîma Komara Îslamî tevî Hizbulaha Lubnanê û pêkanîna kirîzan di dewleta demokratîk a Lubnanê de, şandina çekan ji bo Talebanan li Efxanistanê, pêkanîna aloziyan li Îraqê, hewl ji bo bidestveanîna çekên Etomî û gefxwarin ji tenahiya cîhanê bi giştî û bi taybetî herêma Rojhilata Navîn.

Hêjayî gotinê ye ku Bûş careke din girtin û îşkencekirina pisporên Amerîkayî ku bo seredanekê çûbûn Îranê, şermezar kir û bi karekî hovane hesiband.

Amerîkayê ji Îranê xwestiye ku bi lezgînî dawiyê bi kiryarên xwe ên şandina çek û sîlahan bo Îraqê û her wiha perwerdekirin û piştgirî ji hêz û girûpên radîkal û terorîstî bîne.

# Rewşa 2 Rojnamevanên Kurd Ên Girtî Li Îranê Gellek Dijwar E



2 rojanmevanên Kurd, **Ednan Hesenpûr** û **Hîwa Botîmar** ku ji aliyê dadgeha Îranê ve bi cezayê îdamê hatine mehkûmkirin, zêdetirî 45 rojan dibe ku gireva birçîbûnê lidarxistine û niha tendurustiya wan gellek dijwar û xirab e.

Ev 2 rojnamevanên Kurd ku 6 mehan berî niha hatine binçavkirin, ji ber rewşa nebaş ya wan di girtîgeha bajarê Sine de, dest dane gireva birçîbûnê. Wan daxwaz kiriye ku wan ji girtîxaneya giştî re bişîin û rê bidin ew bi parêzerên xwe re hevdîtinan pêk bînin.

Heta niha hemû daxwazên van 2 rojenamevanên Kurd bê bersiv mayne.

Malbatên rojnamevanên girtî ên Kurd di nameyekê de ji wan xwestine ku dawiyê bi gireva xwe ya birçîbûnê bînin. Malbatên girtiyan di nameya xwe de tekez kirine, ji ber ku berpirsiyarên rejîma Îslamî a Îranê tu pûte û girîngiyekê ji jiyana mirovan re nadin û bêedaletiya rejîmê di dayîna biryara îdama 2 rojanemevanên Kurd de bi eşkere derket holê û her wiha heta niha gellek kesan ji ber gireva birçîbûnê di girtîxaneyên rejîmê de jiyana xwe ji dest dane, em ji we daxwaz dikin ku bi lezî dawî bi gireva xwe ya birçîbûnê bînin.

Di dawiya nameyê de ji civat û komeleyên navneteweyî û parêzvanên mafê mirovan hatiye xwestin ku li hember vê bêdadiya rejîma Îslamî a Îranê bêdeng nesekinin û ji bo rizgarkirina Ednan û Hîwa xebat û têkoşînê bimeşînin.

# Cixerekêşan Egera Tûşbûn Bi Korbûna Mirovan Zêde Dike



Lêkolînvanên Ustralyayî dan zanîn ku hegerên tûşbûn bi lawazbûna dîtina çavan ku piştî pîrbûna mirovan tê xuyakirin, di nava wan kesên ku cixaran dikêşin çar qatî zêdetirî wan kesan e ku cixaran nakişînin.

Ev vekolîne bi serokatiya Cinîfêr Tan, li zanîngeha Sîdnî li ser 2454 kes ji Ustraliyên ku temenê wan aliyê kêm 49 salî bû, di heyamê 10 salan de hatiye ceribandin û encamên wê jî di rapora doreyî a nojdarên çavan de hate belavkirin. Di vê raporê de gellek bi hûrî îşare bi vê çendê hatiye kirin ku kesên cixarekêş li berhevdan tevî wan kesên ku tu caran cixarê nakişînin, çar hember zêdetir tûşî vê nexweşiyê dibin.

Lê dema ku tûş jî dibin, sê qat tundtir û aloztir ji wan kesan dibin ku cixarê nakişînin.

Hêjayî gotinê ye ku lawazbûna torên herçiqas nabe hegera korbûna mirov bi tevahî, lê kesên tûşbûyî bi vê nesaxiyê êdî nikare bixwîne û binivîsîne û heta tirombêlê jî bajo û nemaze tûşbûn nikare kesên hember xwe jî bi başî nas bike.